*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî
www.agirimedia.org Hejmar (247) 04-02-2015 Buha (150) Tûmen

## Komara Kurdistanê, PDKÎ û Pêşewa Qazî Mihemed ji hevdu nahêne cudakirin



**Rêûresma 2'ê Rêbendanê 69'emîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê di binkeya Deftera Siyasî ya PDKÎ de bi rê ve çû**

Di vê rêûresmê de ku kadr, pêşmerge û malbatên wan û herwisa birêz Mesûd Tek sekreterê giştê yê Partiya Sosyalîst a Kurdistana Bakur beşdar bûn, piştî xwendina sirûda neteweyî ya "Ey Reqîb", û ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtina ji riha pak ya şehîdên Kurd û Kurdistanê, rêzdar Kerîm Perwîzê endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ axivtinek li ser Komara Kurdistanê kir.

Piştre sirûdeke şoreşgerî ji aliyê Koma Mûzîkê ya PDKÎ ve hate pêşkêşkirin.

Piştre peyamên Yekîtiyên Jinan, Xwendekaran û Lawan hatin pêşkêşkirin, û zarokên serkevtî di pêşangeha wênekêşanê ya ku ji aliyê nawenda Nêgiz ve bi boneya 2'ê Rêbendanê hatibû amadekirin, hatin xelatkirin.

Ew rêûresm piştî xwendina helbestekê û sirûdeke şoreşgerî, bi govend û dîlaneke bi coş bi dawî hat. Xwendevanên hêja dikarin beşek ji axivtina rêzdar Kerîm Perwîzî di rûpela 3'ê de bibînin û bixwînin.

## DAÎŞ'ê agir berda pîlotê Ordunî!



**DAÎŞ'ê pîlotê Ordunî yê bi navê "Meaz Kesasibe" yê ku beriya niha li Sûriyê bi saxî ketibû destê çekdarên wê de, şewitand.**
Li gorî nûçeya Rudaw'ê, DAÎŞ'ê vîdyoyek belav kiriye ku tê de tê dîtin, pîlotê Ordunî Meaz Kesasibe bi saxî di nav qefesekê de tê şewitandin. Ev çend roj bûn di navbera DAÎŞ û Ordunê de li ser pevguhertina wî pîlotî û endama DAÎŞ'ê ya bi navê Sacide Rîşawî danûstandin hebûn, lê bi şewitandina pîlot re her tişt xilas bû.

Balafira pîlotê Ordunî, ku di çarçoveya Hevpeymaniya Navdewletî de li çeperên DAÎŞ'ê yên li Sûriyê dida, meha Kanûna sala 2014'an li nêzîkî bajarê Reqayê yê Sûriyê ketibû, pîlot jî bi saxî ketibû destê çekdarên DAÎŞ'ê de.




## PDKÎ rizgarbûna Kobanê ji gelê Kurd pîroz kir

R: 7

*Berevajîkirina rastiyan, û heqîqeteke pîroz*



6

*"Baskirina ji Pêşewa Qazî Mihemed û Komara Kurdistanê bi bê baskirina ji PDKÎ, baskirineke natewaw e".*



3

*"Pêşmerge jî bûye remza berxwedan û welatparêziyê ku yek ji deskevtên Komara Kurdistanê ye".*



4

*"Dema ku me yekem hejmara rojnameya Agirî, weşand, ew yek bîreweriya min ya herî xweş e".*



8

*Qonaxeke nû ji jiyana nerizayetiya mamostayan*



7

*Belgefîlma "Welatê me Kurdistan e" hate nîşandan*



10

## Sergotar

# Silav li Kobanê



Şehab Xalidî

Herçend Kobanê bû armanca êrîşa ne tenê girûpeke terorîst, belkû kete ber êrîşa dewleta herî hov û terorîst ya serdem, û gellek xortên Kurd xwîna wan rijiya ser xaka pîroz ya Kobanê, û ew bajar bi tewahî wêran bû, û bi sedan hezar kesî aware û koçber bûn, û gellek zarok û jin û mêrên pîr û kal di rewşa herî xirab ya koçberiyê de canê xwe ji dest dan, lê navê Kobanê ne tenê di herêmê de, belkû li sertaserî cîhanê de bû naveke pîroz, û cangorîtî û cesûriya ku keç û kurên Kurd ji bo rizgarkirina vî bajarê ji detsên DAÎŞ'ê ji xwe nîşan dan, tewahiya xelkê cîhanê matmayî kir.

Dijminan gellek dek û dolab bo êxistina Kobanê gerandin, û ji bo bihîstina nûçeya ketina Kobanê xew ji çavên xwe herimandin, lê Kobanê bû qada berxwedana xoertên Kurd yên her çar perçeyan, û ew dersa da dijminên Kurd û Kurdistanê, ku tu carî bîr ji dagîrkariyê nekin, ji ber ku ew nahêlin bihustek xaka wan ya pîroz di destên dagîkaran de bimîne.

Belê xortên Kurd bi taybetî keç û jinên Kurd, 133 rojan, şev û rojên xwe di qadên şerê kolan bi kolan di hemberî dijminê herî hov û mirovkuj yê sedsalê de derbaz kirin.

Belê wan xortên leheng karîn ku wî dijminê ku cîhan bi bihîstin û dîtina dîmenên cînayetên wan matmayî mabûn, wisa neçar bi revînê bikin ku xwwe ji termên kuştiyên xwe jî nekin xwedî.

Belê em dikarin bêjin, berxwedana xortên Kurd ya sedsalê hezar carî pîroz be, yekîtiya Kurdên her çar aliyên Kurdistanê ku derseke jibîrnekirî da DAÎŞ û piştgirên DAÎŞ'ê pîroz be. Rizgariya Kobanê ji dê û bavên şehîdên ku bi xwîna xwe ya sor nehêlan Kobanê bikeve hezar carî pîroz be. Belê Kobanê neket û tu carî nakeve.

# Civîan Deftera Siyasî ya PDKÎ û hevalên pêşîn



**Kurdistanmedia: Pirsa yekgirtina Partiya Demokrat di civîna hevpar ya Deftera Siyasî ya PDKÎ û hevalên pêşîn de hate gengeşekirin.**

Roja 13.11.1393'an civîneke hevbeş di navbera PDKÎ û hevalên pêşîn de bi rêve çû, û di vê civînê de, bas ji mijarên girîdayî yekgirtinê û hewldan bo hilgirtina astengiyên li ser riya vê piroseyê hatin kirin.
Di encamp de hinek biryar û pêşniyar hatin dayîn, ku di civînên bê de, wê behs û gengeşe li ser wan bêne kirin.
Herdu aliyan pêdagirî li ser domandina van civînan kirin.

# Heyetek Koma Civakên Kurdistanê "KCK"ê, seredana Deftera Siyasî ya PDKÎ kir

Roja çarşemiyê 8'ê Rêbendanê, heyetek bi nûneratiya Koma Civakên Kurdistanê bi serperestiya birêz "Ferhan Amara", seredana binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ li bajarê Koyê kir, û ji aliyê heyeta PDKÎ bi serperestiya birêz Mihemed Nezîf Qadirî ve, hatin pêşwazîkirin.
Di despêka vê rûniştinê de, heyeta mêhvan serbarê nîşandana dilxweşiya xwe ji vê seredanê, silav û rêzên serokatiya KCK'ê ku ji sekreterê giştî û rêberiya PDKÎ re hatibûne şandin, gehandin heyeta PDKÎ.
Piştre birêz Ferhan Amara basek derheq bi rewşa vê dawiyê ya Kurd bi giştî û Rojava û Başûr bi taybetî pêşkêş kir, û piştre li ser vê yekê sekinî ku, di dema berbirûbûna Kurdên Rojava û Başûr tevî girûpa terorîstî ya DAÎŞ'ê, Kurdên her çar parên Kurdistanê, hevxebatî û piştevaniya xwe bona parastina axa Kurdistanê û kerameta netewa Kurd, bi taybetî li Şingal û Kobanê, ragehandin.
Piştre birêz Mihemed Nezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ serbarê pîrozbahiya rizgariya Kobanê ji heyeta mêhvan û gelê Kurd bi giştî, hêvî xwest ku serkevtina han, bibe despêka serkevtina yekcarî û bilez a hêza pêşmergên Kurdistanê bi ser terorîstên DAÎŞ'ê, li hemû axa Kurdistanê.
Di dawiyê de her du heyetên KCK'ê û PDKÎ li ser bihêzkirina peywendî û hevxebatiya di navbera xwe de tekez kirin.




# Li Nawenda 3'ê ya Kurdistanê, 2'yê rêbendanê hate pîrozkirin

**Rêûresma 2'yê rêbendanê, 69'mîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê, roja 3'yê Rêbendana sala 1393'an, di Nawenda 3'ê ya Kurdistanê de bi rê ve çû.**

Rêûresmê bi beşdariya hejmarek ji endamên rêberiya PDKÎ û birêz "Mes'ûd Tek" sekreterê giştî yê Partiya Sosyalîst a Kurdistana Bakûr û mêhvan û endaman, kadr, pêşmerge



Dom R: 5

# Raporek li derheq axivtina rêzdar Kerîm Perwîzî di rêûresma 2'ê Rêbendanê 69'emîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê de

## Rêzdar Kerîm Perwîzî: "Hinek ji neyarên PDKÎ gellek hewl dane ku Komara Kurdistanê û deskevtên wê, ji PDKÎ cuda bikin".



Di roja 2'ê Rêbendanê de, PDKÎ bi boneya 69'emîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê, di binkeya Deftera Siyasî ya bajarê Koyê de, rêûresmek pêk anî. Di vê rêûresmê de rêzdar Kerîm Perwîzî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ axivtinek li ser vê roja dîrokî kir.

Navbirî di destpêkê de bi vî awayî bas ji avakirina Komara Kurdistanê û rola Pêşewa Qazî Mihemed di vê komarê de kir: "Di vê dema dîrokî de, ku di qada mezin ya Çarçiraya Mehabadê de, Komara Kurdistanê tê ragehandin, bi dest û bi hêz û bi hizra mirovekî tekoşer, rêberekî mezin yê dîroka Kurdistanê, wate Pêşewa Qazî Mihemed, ew komara tê ragehandin.

Me bi dehan car û bi sedan carî di dîroka neteweyan de, û di dîroka neteweya Kurd de jî, me bûyerên bi vî rengî dîtine, me derfetên siyasî yên dîrokî dîtine, ku ji bo neteweyên cuda pêk hatine, lê ew derfet, û ew hewldan ji dest çûne, yan jî bi awayekî ne dirust mifah ji wan hatine wergirtin, û bi zirara Kurdan bi dawî hatine.

Lê di sala 1946'an de, di vê derfeta siyasî û dîrokî de, rêberekî jêhatî wekî Pêşewa Qazî Mihemed rêberatiya tevgerekê dike, û kiyaneke siyasî-neteweyî ava dike, ku ew kiyan ji bo neteweya Kurd bûye belgeya selmandina neteweyekê, û bûye cihê şanaziya xortên duh, îro û sibê. Ew yek rola rêberekî jêhatî û siyasî nîşan didin, ku derfetan, çawan bi kar bînin, û wan ji bo berjewendiyên neteweyî bi kar bînin, û ji bîr û hizra teng ya eşîretî derbaz bibin, û berjewendiya neteweya xwe berçav bigrin, û bikarin afirandinan bikin".

Navbirî bas ji pêwendiya PDKÎ û Komara Kurdistanê kir û got: "Baskirina ji Qazî Mihemed û Komara Kurdistanê bi bê baskirina ji PDKÎ, baskirineke natewaw e. PDKÎ wekî organîzasyoneke modern, xelkê û hêzên tekoşer, li dewra hevûdu kom û organîze dike, û di pêxema armanceke hevpar de ji wan re pilanan dadirêje".

Piştre navbirî qala xalên lawaz ên komarê jî kir û got: "Yek ji deskevtên Komara Kurdistanê, ew bû ku hewl dida hêzeke leşkerî, nîştimanî û neteweyî bi navê hêza pêşmerge ava bike, lê xalên wê yên lawaz jî hebûn. Xala wê ya lawaz ew bû ku hêşta civak negihabû wê astê ku hêzeke pêşkevtî û yekdest hebe.

Em dibînin ku hinek ji hêzan ser bi serok eşîran bûne, û biryar ji wan werdigirtin, bedela wê ku biryarê ji fermandarê hêza pêşmerge wergirin. Xalek din ya lawaz ya Komara Kurdistanê ew bû ku Komara Kurdistanê tenê di bazineyeke teng da hatiye avakirin, ku hemû xaka Kurdistana Îranê bi xwe ve negirtiye, ku ew jî bê sedem nebûye, lê vê yekê zirar gihande komarê, û komar lawaz kir".

Navbirî rola tekoşerên beşên din yên Kurdistanê jî di avakirina Komara Kurdistanê de ji bîr nekir û got: "Tekoşerên Kurd ên beşên din jî, rola xwe di avakirina Komara Kurdistanê de, û di şer, û di cihgirkirna ewlehiyê de hebûne, ku her wekî di dîrokê de bas jê hatiye kirin, efserên başûra Kurdistanê jî rol di Komara Kurdistanê de hebûne, ku ew efser piştre bi destên rejîma Îraqê hatin şehîdkirin, bi taybetî hewce ye ku em şoreşgerên Barzan bi rêbertiya Mela Mistefa Barzanî bi bîr bînin, ku di xizmetkirina bi Komara Kurdistanê de roleke dîrokî hebûne".

Rêzdar Kerîm Perwîzî herwisa îşare bi rola nîgetîv ya wan kes û aliyan jî kir ku hewl didin berevajiyê nîşandana rastiyan, Komara Kurdistanê û Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê ji hevûdu veqetînin, û got: "Hinek ji neyarên PDKÎ gellek hewl dane ku Komara Kurdistanê û deskevtên wê ji PDKÎ cuda bikin. Gellek caran bas ji şanaziyên Pêşewa Qazî Mihemed tê kirin, lê Partiya Demokrat ya Kurdistanê ku avakerê Komara Kurdistanê ye, ji bîr dikin, tu dibêjî qey wê demê PDKÎ tunebûye, û Qazî Mihemed rêberê Partiya Demokrat ya Kurdistanê nebûye. Partiya Demokrat ya Kurdistanê bi qestî û bi zanebûn jî tê jibîrkirin, bona vê ku deskevtên komarê bi deskevtên hin kes û aliyên din bizanin, û Partiya Demokrat a Kurdistanê ji vê bûyerê cuda bikin. Lê herwekî me got û Partiya Demokrat ya Kurdistanê, Pêşewa Qazî Mihemed, û Komara Kurdistanê, sê biyavên cuda û tewawkerê diyardeyeke neteweyî ne, ku ji hevûdu nahêne cudakirin, û her cure tekoşînek di vê pêxemê de, hewl û tekoşîneke bê encam dibe".



# Raporek li derheq axivtina rêzdar Mihemed Nezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ li rêûresma 2’ê Rêbendanê di nawenda 3’ê ya Kurdistanê de



**Rêzdar Mihemednezîf Qadirî: “Pêşmerge jî bûye remza berxwedan û welatparêziyê ku yek ji deskevtên Komara Kurdistanê ye”.**

Bi boneya 69’emîn salvegera avakirina Komara kurdistanê di nawenda 3’ê ya Kurdistanê de rêûresmek pêk hat, û di vê rêûresmê de rêzdar Mihemed Nezîf Qadirî axivtinek ji bo beşdaran li ser Komara Kurdistanê kir.

Navbirî di destpêkê de îşare bi xalên bihêz û erênî û deskevtên Komara Kurdistanê kir û got: “Komara Kurdistanê digel vê ku zêdetir ji 11 heyvan nejiya, lê karî di vê heyama kêm de, tevgera Kurd û rêbaza Kurdayetiyê bi awayekî modêrn organîze bike, û karî tevgera Kurd bixe ser pergaleke siyasî ya modêrn ku heya niha jî peyamên Komara Kurdistanê û armancên Komara Kurdistanê, rênîşanderê tevgera Kurdan bi giştî ne.

Komara Kurdistanê karî zimanê kurdî bike zimaneke fermî yê îdarî di Kurdistanê de, û herwisa di xwendingehan de karî ku çand û wêjeya Kurdî vejîne, û bi dehan kovar û rojnameyan di vê heyama kêm de belav bike.

Hêza millî ya Kurdistanê ji hêza pêşmergên Kurdistan hate pêkanîn, û bi awayekî modêrn hate organîzekirin, û ji aliyê efserên nîştimanperwer ên Kurd ve, di warê leşkerî û siyasî û xebata netewî de, bi armanca parêzgarîkirin ji deskevtên Komara kurdistanê hatin perwerdekirin. Peyama hevxebatî û pêkve jiyanê, bi gelên Îranê ragehandin, û digel gelê Tirk karîn li ser bingeheke siyasî û cuxrafiyayî, û li ser xalên hevpar li hev bikin, ku ew lihevkirin heya niha jî bo herdu gelên Kurd û Tirk di Îranê de bingehek pêkvejiyanê û rêbazeke aştîxwazane ye, ku di pêşerojê de jî dikare mîkanîzma vê pekve jiyanê be”.

Navbirî di dirêjiya axivtina xwe de got: “Komara Kurdistanê peyama neteweyî bi civatên xelkê Îranê, û gelê Kurd di hemû parên Kurdistanê de ragehand, peyamek ku karî tevgera Kurd û têkoşerên Kurd li dewra alaya Kurdistanê û armancên Komara Kurdistanê Kom bike.

Hekî em li dîroka Kurdan binêrin û çavekê ji wan dêkyomêntan bikin ku li ser Komara Kurdistanê û li ser siyasetên Komara Kurdistanê û helwêstên wê hatine nivîsandin, rastiyek ji me re eşkere dibe, û ew rastî jî ev e ku Pêşewa Qazî Mihemed wekî kesyetiyekî naskirî di tevgera Kurdan de, wekî serkomarê Kurdistanê, di tewaya civînên tevî dîplomatên Yekîtiya Sovyet ya wê demê û rêberên hikûmeta neteweyî ya Azerbaycanê de, ku boçûna wan ew bû ku Kurdistan Îranê parek be ji îdareya Hikûmeta Neteweyî ya Azerdaycanê, di hemberî wan de helwêst girt, û daxwaz kir ku tevgera Kurd wekî faktereke serbixwe û hikûmeta Kurdistanê wekî hikûmeteke xweser ku şunasa neteweyî pê ve xuya bike, rêz û hurmet jê bê girtin, û bi tu awayî ev siyaseta wan qebûl nekir, û ev yek ragehand ku hekî rojekê qirar be Kurd îdareya xwe bi hikûmeta netewî ya Azerbaycanê ve girê bide, çima bi dewleta nawendî ya Îranê ve girê nede? Ev yek eşkere dike ku Pêşewa û rêberên PDKÎ ku avakerên Komara Kurdistanê ne, li ser şunasa neteweyî û îradeya gelê Kurd pêdagiriyê dikirin. Her ev bîrokeya neteweyî bû ku xebata Kurd li parên din ên Kurdistanê li dewra armancên xwe kom kir”.

Wî xizmeta Barzaniyan jî bi Komara Kurdistanê ji bîr nekir: “Xizmetkirina Barzaniyan bi rêberiya nemir Mela Mistefa Barzanî, xebat û tekoşîna wan û bergirî ji deskevtên Komara Kurdistanê û şer li dijî hêzên dagîrker ên dewleta nawendî û berxwedana wan di nava şanaziyên Komara Kurdistanê de tu haşayekê hilnagirin. Hatina tîmek ji efserên Kurd ji başûra



Kurdistanê bona xizmet bi armancên Komara Kurdistanê û perwerdekirina hêza pêşmerge, mînakek zindî ya vê hevxebatiya neteweyî ye. Beşdariya bi dehan rewşenbîr û siyasetvanên parên din ên Kurdistanê li bajarê Mehabadê û xizmetên binirx ên wan, nîşana neteweyîbûn, û heza neteweyî û eşkerekirina hevsoziya digel Komara Kurdistanê û tevgera Kurd di salên 1945, 46, û 47'an di Kurdistana Îranê de ne".

Rêzdar Mihemed Nezîf Qadirî bas ji pirensîp û bingehên siyasî yên Komara Kurdistanê jî kir û got: "Hekî piştî 69 salan ku bi ser avakirina Komara Kurdistanê re derbaz dibe, em çavekî bi ser pirensip û bingehên siyasî ên Komara Kurdistanê de bigerînin, niha jî ew bingehên siyasî û ew hêmayên neteweyî bo tevgera Kurd di hemû parên Kurdistanê de neguher in, ku dikarin remza rizgarî û berxwedana neteweya Kurd di hemû parên Kurdistanê de bin. Kesayetiya Pêşewa Qazî Mihemmed û xebatên wî yên binirx, wekî kesatiyekî ku jiyana xwe di pêxema rizgariya neteweya xwe û nîştimana xwe de gorî kir, niha jî remza yekîtiya hemû tekoşerên Kurd e di beşên din ên Kurdistanê de, û gelê Kurd şanaziyê jî pê ve dike".

Navbirî derheq Sirûda neteweyî ya "Ey Reqîb" û alaya Kurdistanê jî got: "Sirûda neteweyî ya "Ey Reqîb" niha jî yek ji wan sirûdan e ku di serdanên fermî û serdana welatên mezin bo herêma Kurdistanê, û bo aliyê hizb û aliyên siyasî û di rêûresmên siyasî de tê danîn, û rêz jê tê girtin, û bûye remza yekîtiya Kurdan di hemû beşên Kurdistanê de.

Alaya Kurdistanê jî wekî hêmayeke neteweyî niha jî li rex alaya mezintirîn welatên cîhanê tê danîn, alayek ku bûye remza berxwedan li dijî terorîzm û dîktatoriyê".

Li ser peyva "pêşmerge" wekî navekî pîroz, û yek ji deskevtên Komara Kurdistanê rêzdar Mihemed Nezîf Qadirî got: "Pêşmerge jî bûye remza berxwedan û welatparêziyê, ku yek ji deskevtên Komara Kurdistanê ye. Pêşmerge niha di nava nawendên siyasî ên cîhanê de wekî firişteya aştî û demokrasî û welatparêziyê çav lê tê kirin".

Wî di vê axivtina xwe de rojavaya Kurdistanê jî ji bîr nekir û got: "Di rojavaya Kurdistanê de jî xebata xortên Kurd di vê parê de kariye ku beşek ji armancên siyasî bi dest bixe, û niha jî dirêjîpêdana bi vê xebatê, ji aliyekî ve tevî dewleta Beşar Esed û ji aliyekî din ve li dijî terorîzma DAÎŞ'ê kariye heqaniyeta xwe û îradeya xwe bi civaka cîhanî nîşan bide, û berxwedaniya wan niha bûye çîroka xortên Kurd di hemû beşên Kurdistan û evîndarên rêya azadiyê di seranserî cîhanê de".

Rêzdar Mihemed Nezîf Qadirî bi vî awayî dawî bi axivtina xwe anî: "Digel rêberên şehîd Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî û bi dehan xebatkarên rêya azadiyê, carek din em peymanê nû dikin ku heya bidestveanîna armancên Komara Kurdistanê û himbêzkirina bûka serkevtinê heya gehandina Kurd bi nasnameya neteweyî û serweriya neteweyî, em dev ji xebatê bernadin, û mil bi milê hemû hêzên siyasî û pêşkevtinxwazên Kurd û Îranî, emê hewlê bidin ku rejîma Komara Îslamî ya Îranê, wekî rejîma berê bigehînin cezaya xwe, li derheq tawanên di hemberî mirovahiyê û di hemberî azadîxwazên wêlatê me de encam dane, û bi îradeya gel emê nizamek demokrat û federal ava bikin, û gelê Kurd bigehînin azadî û aştî û dadperweriyê".



**«Komara Kurdistanê peyama neteweyî bi civatên xelkê Îranê, û gelê Kurd di hemû parên Kurdistanê de ragehand, peyamek ku karî tevgera Kurd û têkoşerên Kurd li dewra alaya Kurdistanê û armancên Komara Kurdistanê Kom bike».**

## *Doma R: 2*

û malbatên Nawenda 3'ê ya Kurdistanê, bi sirûda netewî ya "Ey Reqîb" û ragirtina deqeyekê bêdengî bona rêzgirtin ji canê paqij ên şehîdên Kurd û Kurdistanê dest bi karên xwe kir. Piştre birêz Mihemed Nezîf Qadirî endamê deftera siyasî a PDKÎ, derheq salvegera avabûna Komara Kurdistan çend gotinek pêşkêşî beşdarên rêûresmê kirin.

Di beşek din a rêûresmê de, sirûda "Bijî her Kurd û Kurdistan" ku ji aliyê girûpa hunerî a beşa perwerdeya Nawenda 3'ê ya Kurdistanê ve hatibû amadekirin, û herweha helbestek bi navê "Çarçira" ku ji aliyê Jîno Mokerem ve hatibû amadekirin, hatin xwendin.
Piştre peyama hevpar a her sê Yekitiyên Lawan, jinan û xwendekarên demokrat ên Kurdistanê Îranê, ji aliyê Zekiye Sidqî endama desteya



rêveberiya Yekîtiya jinan ve hate pêşkêşkirin.

Di beşa din a rêûresmê de xelatên pêşangeha wêneyên nawenda Nêrgiz, ku di rojên 1 û 2 ên Rêbendanê de bi rê ve çûbû, bi ser serkevtiyên vê pêşangehê de hatin parvekirin, û piştre Hikmet Nebîzade pêşmergê PDKÎ helbestek derheq bi salvegera avabûna Komara Kurdistanê pêşkêşî beşdarê rêûresmê kir.

Di dawiyê de rêûresmê bi sirûdek şoreşvanî bi navê "Daye here cengî" ku ji aliyê girûpa hunerî ya beşa perwerdeya Nawenda 3'ê ve hatibû amadekirin, dawî bi karên xwe anî

# Berevajîkirina rastiyan, û heqîqeteke pîroz





**Çeko Ehmedî**

Di dîroka her neteweyekê de, hinek boneyên pîroz yên neteweyî têne xuyakirin, û takên vê civakê wekî şanaziya neteweyî û cejna neteweyî bilind dinirxînin. PDKÎ jî di yekem pêngava xwe de dîrokek ji xwe re nivîsand ku piştî cejna newrozê, tenê boneyek e ku gelê Kurd bi giştî şanaziyê pê ve dikin, û rêz û hurmetê jê digrin.

Komara Kurdistanê yekemîn komar û tenê dewleta sîstematîk û modern a Kurd bûye ku bi serokatiya pêşewayê Kurd Qazî Mihemed û bi hewla PDKÎ di roja 2'ê Rêbendanê de (22'ê Çileya Paşîn a sala 1946), wate 69 salan berî niha hate avakirin. Komara Kurdistanê meztirîn deskevt û xweştirîn mizgîniya azadiyê heya wê serdemê ji bo neteweya Kurd bû. Kesên din hebûn ku ji beşên din ên Kurdistanê ber bi Kurdistana Îranê bi rê ketin.

Hemû ew kesên ku di perçeyên xwe de, derfeta xebatê ji wan hatibû standin, ber bi komarekê bi rê ketin, ku serkomarê Kurdistanê Pêşewa Qazî Mihemed, Kurdistana Îranê bi mal û welatê hemû neteweya Kurd dihesiband. Wekî mînak em dikarin qala bîreweriyke mamosta Hjar bikin: "Payîz bû, û baran dibarî.

Gotin ku Barzaniyên aware hatine gundê Qumqelayê. Bilez digel "Heme Mewlûde Çirç" me du tirombîlên barhilgir tejî çirpiyên biriyayî yên daran kirin, û me bo Barzaniyan bir (Çêştî Micêwr R: 66).

Komara Kurdistanê wekî milkê hemû Kurdan bû. Hemû yên ku di Komara Kurdistanê de cihê wan hebû, aliyê kêm bi berçav be jî, Qazî Mihemed wekî serkomarê xwe dizanîn. Lê mixabin hinek ji wan, çi pêş komarê û çi jî di dema hiloşîna komarê de îxanet li komarê û Pêşewa kirin.

Bo mînak her di pirtûka bîreweriyên mamosta Hejar de hatiye ku dema di Seqizê de têne destbiserkirin (digel Qasim Xayê Îlxanî û Hemed Emîn Axayê Mehmûd Axa) gellek bi şanazî ve, ew du kes qala pêwendiyên xwe digel rejîma paşatiyê dikin,û dibêjin ku tejî sobeyeke daran,raport ji bo karbidestan nivîsandine,û di komarê de ajan bûn. Niha piştî 69 salan, pîroziya vê deskevta modern ya Kurdî her di cihê xwe de ye.

Lê mixabin, zincîreyek ji kanalên ragehandinê nezanane di hewla berevajîkirina rastiyekê de ne, ku ne bi dost û ne jî bi destên dijmin pîroziyên wê kêm nabin.

Komara Kurdistanê di şêweya xwe de, tenê dewleta herêmê bûye, ku hemû pirensîpên exlaqî berçav girtibûn, ew komar kesekî serokatiya wê dikir, ku hemû hêza madî û hizra takekesî ya xwe, di riya bi encam gihandina hêviyên ji mêjîn ên neteweya Kurd de danîbû.

Dîroka nivîsandî bi destên dost û dijminan, eşkere kiriye, ku kesayetiya Pêşewa Qazî Mihemed ew qas mezin û qahîm e, ku tu cure berevajîkirinek nikare pileya bilind ya wî ji yekemîn ve bo pileya duyem jî bîne xwar.

Pêşewa Qazî Mihemed bi lêkdaneweya hemû egeran, riya lojîk û cesûrane, bi ser jixwerazîbûn û xwe derbazkirinê de ferz dike. Kiryarên cesûrane yên Pêşewa bi xwe hilgirê çendîn pirtûkan e, û em dikarin wekî sermeşqa kiryarên cesûrane yên rêberên cîhanê bi nav bikin.

Ew ma, û hemû ew kiryarên ku dijminan bi tawan dizanîn, girte stûyê xwe, û cesûrane bergirî ji neteweya xwe kir, û riya heta hetayî bo mana di nav dilê xak û netewe de hilbijart, û canê xwe goriyê xak û neteweya xwe kir.

Komara Kurdistan bi hezaran sedeman, piştî newrozê neteweyîtirîn û pîroztirîn cejna neteweyî ye, û her bi vî rengî jî wê bimîne.

Pêşewa Qazî Mihemed yekem serkomarê yekem dewleta komarî di Kurdistanê de, sembola pêşewabûnê ye, û pêşewa jî dimîne.
Peyva Pêşewa di kultura hizrî ya hemû takên kurd de bûye remza mezinî û xwebexşînê bo neteweya xwe. Ew tenê kesek e, ku naznavê pêşewa pirr bi wateya peyvê bi xwe ve girtiye, û wê bo heta heta wê sembola pêşewabûnê bimîne. Partiya Demokrat ya Kurdistanê bi emanet ve hilgirê mîratekê ye ku 69 salan berî niha di dîroka xwe û neteweya xwe de tomar kiriye, û heya gihîştina bi armancên wê komarê, hedayê nade.

# Nerîna Lîderan


Osman Ocalan:

**“PKK dixwaze min bikuje”.**


Can Kirî:

**“Rizgarkirina kobanê gellek girîng bû”.**


Asya Ebdulah:

**“Tirkiye wê ji hemû welatan zêdetir zirarê ji belavbûna terorê bibîne”.**


Cebar Yawer:

**“Em vê gavê hejmara şehîdan eşkere nakin”.**

# PDKÎ rizgarkirina Kobanê ji gelê Kurd pîroz kir




**Deftera Siyasî ya PDKÎ di daxûyaniyekê de bona rizgarkirina Kobanê pîrozbahî ji gelê Kurd kir.**

Eva deqê daxûyaniyê ye:
Nûçeya serkevtina şervanên Kurd û hêzên pêşmerge bi ser hêza teror û dijî mirovahiyê ya DAÎŞ’ê li bajarê Kobanê, û paqijkirina vî bajarê Kurdistanî ji vê hêza tawankar, xweşî xiste dilê her Kurdekî welatparêz û azadîxwaz de.

Bi boneya vê serkevtina mezin û girîng, em pîrozbahiya xwe ji serokatiya herêmê, hevpeymanan, pêşmerge û şervanên xweragir ên qada şerên hemasî ên Kobanê, kes û karên vî şerê pir ji qurbanî û hemû wan aliyan dikin, ku di bidestxistina vê deskevta mezin de xwedî rol nûne.

Hêviya me ev e ku serkevtina han bibe despêka serkevtina yekcarî û bilez a hêza pêşmerge bi ser terorîstên DAÎŞ’ê di tewahiya axa Kurdistanê de.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**07.11.1393**
**27.01.2015**

# Kobanê hate rizgarkirin



**Pêşmergeyan û hêzên YPG’ê nûçeya azadkirina bajarê Kobanê ya rojavaya Kuristanê ragehandin.**

Di vê pêwendiyê de Enwer Muslim hevserokê Kantona Kobanê di daxuyaniyekê de ragehand: “Bajarê Kobanê bi temamî di destê hêzên pêşmergeyên Herêma Kuridstanê û gerîlayên Yekîneya Parastina Gel (YPG) ji destê DAÎŞ’ê hatiye rizgarkirin”.

Piştî 133 rojan ji berxwedanek bê wêne, hêzên Kurd li bajarê Kobanê yê rojavaya Kurdistanê karîn efsaneya rêxisina DAIŞ’ê bişkînin.

# Desteya avakirina Kobanê hat pêkanîn



Hewlêr (Rûdaw)- Li bajarê Kobanê yê rojavaya Kurdistanê desteyek hat avakirin ji bo dubare avakirina Kobanê, ku di 26’ê vê mehê de bi temamî ji destê DAÎŞ’ê hate derxistin.

Desteya avakirina Kobanê ji aliyê Desteya Cîbicîkar ya kantona Kobanê ve hatiye pêkanîn, û duh bi rêya daxuyaniyekê, li Qada Azadî li nav bajarê Kobanê hate ragihandin.

Desteya Cîbicîkar ya Kantona Kobanê car din xwest ku korîdoreke mirovî bê vekirin ji bo alîkarîkirina Kobanê û xelkê wê.
Li gora heman daxuyaniyê, desteya ku hatiye avakirin wê ji kesên pispor pêk were.

Ji aliyê xwe ve, serokomarê Tirkiyê Recep Tayip Erdoxan dibêje, ewê alîkariyên xwe yên mirovî ji bo xelkê Kobanê berdewam bikin, lê ew bi ti awayekî tevlî piroseya nûejnkirina bajarê Kobanê nabin.

# *Rêzdar Mihemed Salih Qadirî: “Dema ku digel çend hevalên dilsoz me yekem hejmara rojnameya Agirî, bi Kurmanciya jorîn û bi tîpên latînî weşand, ew yek bîreweriya min ya herî xweş e”.*

H: Arif Velzî

Mihemed Salih Qadirî kurê Derwêş di 10.01.1965'an de, di malbateke cotkar di gundê Çariyê li herêma Selmasê hatiye dinê. Zarokatiya wî jî wekî hemû zarokên belengaz yên wî çaxî yên Kurdistanê, bi sedema siyaseta dijminkarane ya rejîma paşayetî ya Îranê û zulma derebeg û feodolan, tejî bû ji êş û zehmetiyan û bêparbûn ji îmkanatên xwendin û perwerdehiyê. Lewra bi sedema nebûna xwendingehê di gund de, neçar dibe ku di temenê şeş saliyê de, bi armanca xwendinê ji himbêza germ ya malbatê dûr bikeve, û her sal di xwendingeha gundekî herêmê de bixwîne.

Navbirî qonaxa nawendî li Tazeşehrê de didomîne, û di dema daxistina xwendingehê di havînê de, diçe alîkariya malbata xwe, û hinek caran jî diçe karkeriyê li bajarên Îranê de.

Navbirî li derheq nasyariya xwe bi PDKÎ re weha bersiva pirsên Agirî da: “Piştî herifîna rejîma paşayetiyê di sala 1979'an de ku min tevî çend dersxwanên Kurd di bajar de, qonaxa nawendî dixwand, em bi çalakiya PDKÎ di bajar de elaqedar bûn, û di vê demê de, hesta neteweyî ya me çilû da, û hêdî hêdî em ketin nav çalakiyên cur bi cur ên PDKÎ di nav bajar de, ku ji aliyê Komîteya Ararat ya PDKÎ ve dihatin organîzekirin.

Sala 1982'an di rewşeke awarte de, ku tevlîheviyeke zaf di nav rêxistinên Kurd di herêmê de hebû, ez ji aliyê hêza bergiriyê ya Simko ve bo xizmeta pêşmergatiyê hatim birin, û heya sala 1983'an ku êrîşa sertaserî bo ser Kurdistanê hate kirin, ez jî digel dehan hevalên xwe yên bakura rojhilata Kurdistanê hatim rêkxistinkirin.

Birêz Mihemed Salih Qadirî derheq bîranînên xweş yên jiyana pêşmergatiya xwe weha got: “Di temenê 32 salan ya pêşmergatiya min de, gellek bîreweriyên xweş hene, ku her yek ji wan girêdayî ked û emega xelkê Kurdistanê, û cangoriya pêşmereyên PDKÎ di qadên cur bi cur ên xebatê de ne, ku hewce ye bi pîtên zêrîn bêne nivîsandin.

Bîreweriya herî şîrîn ya pêşmergatiya min ew bû ku di sala 2003'an de piştî sehkirin bi hebûna valatiyeke mezin ya di warê ragehnadinê bi zaravayê kurmancî di weşana PDKÎ de, min digel gellek hevalên dilsoz bi ogiriyeke bê hempa ve, me yekemîn rojname



bi tîpên latînî û bi kurmanciya jorîn weşand, û bi vî karî pira pêwendiya weşangeriyê di navbera tevgera rojhilata Kurdistanê û perçeyên din hate avakirin, û ew karê birûmet ji min re wekî jidayîkbûneke taze û bîreweriya herî xweş ya min e, ku tim û tim şanaziyê pê ve dikim.

Bîreweriya herî nexweş ya navbirî eva bû ku:

“Belkû bo min pirr zehmet e ku bikarim di nav bîranînên nexweş yên 32 salan pêşmergatiya xwe de, ya herî nexweş hilbijêrim, ji ber ku her yek ji wan bîranînan xwediyê taybetmendiyên xwe, û girêdayî qonaxên cur bi cur ên rojgarên herî dijwar ên xebata rojhilata Kurdistanê bûne, û wekî emanetekî şoreşgerî hewce ye ku heqê hemiyan bê dayîn.

Lê bîranîna herî dilêş û nexweş û bi bandor di jiyana pêşmergatiya min de, şehîdkirina Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî bi destên rejîma terorîst ya Komara Îslamiya Îranê bû, ku wekî terajidiyayeke mezin banoreke kûr li ser tevgera rojhilata Kurdistanê û morala gelê Kurd danî, û mixabin heya niha jî valahiya ji dest dayîna wan rêberan bo PDKÎ û tevgera rojhilata Kurdistanê nehatiye tejîkirin.



**«Lê bîranîna herî dilêş û nexweş û bi bandor di jiyana pêşmergatiya min de, şehîdkirina Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî bi destên rejîma terorîst ya Komara Îslamiya Îranê bû, ku wekî terajidiyayeke mezin banoreke kûr li ser tevgera rojhilata Kurdistanê û morala gelê Kurd danî».**

Min di sala 1991'na de, tevî keçeke Kurd ya welatparêz bio navê Nayime Xurem î, ku keça endameke rêkxistina nepenî ya PDKÎ bi navê Eladîn Xuremî di gundê Hespeşehra Selmasê bû, jiyana hevbeş pêk anî û ciyê dawet û jiyana me, bi berçavgirtina şert û mercên wê demê yên xebatê ku gellek zehmet bû, di nav çiya di binkeyên pêşmergeyan de bû, û bi xweşî ve berevajiya jiyana bi zehmet, lê di heman demê de berê (behreya) jiyana bi zehmet, lê di heman demê de bi rûmet, me herdukan pênc zarok in, ku wekî dewlemendiyeke me'newî bo pêşeroja civakê têne perwerdekirin.

Di dawiyê de rêzdar Mihemed Salih Qadirî ew peyam ji xortên Kurdistanê re hebû:

“Xwezayî ye ku peyama min wekî kesekî pêşmerge û xizmetkarê gelê Kurd ew be ku çi qas ji destên wan bihê, bikarin di serî de qasa zanist û hişyariya xwe ya neteweyî bibin jor, û bi zanabûna xwe bikevin nav kar û xebata azadiya Kurd û Kurdistanê, û şanaziya vê xizmeta birûmet bikin para xwe, û bi vê şabûnê, wê serê wan di hemberî nivşên siberojê de bilind be”.



# Qonaxeke nû ji jiyana nerizayetiya mamostayan

Hesen Salihzade



Herwekî em agehdar in, di rojên borî de, ji riya ragehandinên giştî ve, nûçeya komek çalakiyên sendîkayî yên mamostayan di raserî Îranê de hate bilavkirin. Çalakî bi nîşaneya nerizayetî eşkerekirin di hemberî rewşa nebaş ya perwerde û hînkirinê bi rê ve çû, û neraziyan di wir de bi awayên cur bi cur dengê nerizayetiya xwe bilind kirin.

Bo vê armancê jî mamostayên piraniya bajaran bi neçûna ser polên xwendinê, di nivîsîngeha xwendingehan de man, û dawî rewşa xirap ya perwerdehiyê xistin ber bas, û pêdagirî li ser mafên xwe yên zewtkirî ji aliyê Wezareta Perwerdehiyê ve kirin.

Di heman demê de, mamostayên çendîn bajaran jî li ser vê yekê sax bûn ku bi kom herin ber deriyê îdareya pêwendîdar û bi nîşandana pilakartan û xwendina daxuyaniyan xwestek û armancên civîna xwe bigehînin guhên berpirsyaran.

Renge mamostayan di vê qonaxê de bi awayên hewce nekarîbin ku çalakiyên xwe bikin medyayî, û bala civak û berpirsyaran bo aliyê rewşa perwerdeya nexweş ya îro, ya di bin deshilata Komara Îslamiya Îranê de rakêşin, lê li çav helwêsta wan digel rewşa rasteqîne ya niha û zexta tundûtîj ya çend salên borî li dijî nawendên medenî, bo me rohn dibe ku çalakiya nû ya mamostayan di vê rewşa hestiyar de gellek bi buha ye.

Lawazkirina pêgeha mamosta di nav civakê de, û dirêjiya pirojeya tirs û emniyetîkirina daxwaziyên mamostayan, du hokarên derekî ne ku pêwendiya wan ya rasterast digel şêweya lênêrîna deshilata siyasî li derheq pirsa perwerdehiyê ve heye.

Bi vî rengî eşkere dibe ku meztirîn astengiya derekî li pêşberî tevgera sendîkayî ya mamostayan û dersxwanan, deshilata siyasî ya hakim û zal di Îranê de ye. Pergala deshilatdariya siyasî ya di Îranê de, bi parêz û ji dîtingeha emniyetî ve li mafên medenî û rêkxistinî yên civaka Îranê dinêre. Karnasên kedîkirî yên perwerdeya li jêr deshilata rejîmê ji dîtingeha berteng ya îdeolojiya olî ve, digel pirsa perwerde serederiyê dikin.

Di zexta ne dadperwerane li ser mamostayan, "Deftera Yekîtî û Nawendên Pîşeyî yên Berevankarê Mafên Mamostayan", di bin siya biyûm ya dewleta bi nav "Mêhr û edaletê" de hate daxistin, û bawernameya çalakiyên wan bi kiryar hate hilweşandin.
Birêvebir û endamên çalak yên rêkxirawên pîşeyî, ketin ber êrîşa hovane, û ne serdemiyane ya parêzerên kevneperestiyê, û hatin cezakirin.

**Di hemberî vê yekê de berpirsyarên rejîma Îranê ne tenê guhdariya çalakên medenî nakin, belkû li ser vê baweriyê ne ku azadiya karê rêkxiraweyî, gefek e li ser nizama wan ya serberedayî û piştî her serhildanekê, li gora şiyana xwe berbirûyê endamên çalak yên pîşeyî dibin.**

Tarîperestên dîrokê hevdem êrîş kirin ser tewahiya wan malper û wêblagên ku bi awayekî pêwendiya wan bi çalakiya sendîkayî ya mamostayan ve hebû.

Doma pêvajoya serkut û çavdêriya kirêt ya berpirsyarên emniyetî li dijî çalakên biyavê perwerdehiyê, bi qasekî armancdar bû ku tu yek ji yekîtiyên pîşeyî yên navxwe yên welat derfeta vê yekê ji wan re pêk nehatiye ku bi boneya çêbûna vê pêla nû ya nerizayetiyan heya daxuyaniyekê jî ji bo civaka Îranê bilav bikin, û tê de kêşe û arîşeyên xwe zeq bikin.

Bi baldan bi vê ku tevgera mamostayan bêy vê ku pirojeyeke nû di ber dest de hebe, bilez dikeve nav qonaxeke nû ya xebata pîşeyî de, û selmînerê vê rastiyê ye ku kêşe û kirîzên nav perwerdehiya di bin siya deshilata Komara Îslamî de bi qasekî kûr in, ku mamosta bi awayê xwerist dest didin girevê, û dengê nerizayetiyê bilind dikin.

Ew gellek baş dizanin ku berpirsyarên siyasî û emniyetî her di bingeh de baweriya wan bi azadiya sendîkayî tuneye, û naxwazin ku kêşeyên di pêşberî perwerdehiyê de çareser bikin.

Hikûmetên demokrat bi xwe derfetê ji bo çalakiyên sendîkayî xweş dikin, ji ber ku ew çalakiya medenî wekî derfet dizanin.
Di hemberî vê yekê de berpirsyarên rejîma Îranê ne tenê guhdariya çalakên medenî nakin, belkû li ser vê baweriyê ne ku azadiya karê rêkxiraweyî, gefek e li ser nizama wan ya serberedayî û piştî her serhildanekê, li gora şiyana xwe berbirûyê endamên çalak yên pîşeyî dibin.

Di pêvajoya gireva 30'ê Befranbarê û 1'ê Rêbendanê de, mamostayên bajarên Kurdistan û bi taybetî yên Seqizê roleke berçav hebûn.

Lewra roja piştî girevê çend mamosta ji bo îdareya lêpirsînê ya "emakinê" hatin gazîkirin, û piştre yek ji wan bi navê mamosta Silêman Ebdî ku mamostayê mîkanîkê yê huneristanê û birêvebirê "şîrketa teavunî ya meserfa ferhengiyan" bû, serbarê vê ku belgeyeke wisa ya tawanbariyê li ser wî tuneye, lê radetsî dadgehê hate kirin, û niha jî heya dema dadgehîkirina wî ew bi danîna zemanetê hatiye azadkirin.

Hêjayî basê ye ku mamosta Silêman Ebdî xeynî vê yekê ku mamostayekî jêhatî ye, kesayetiyekî xweşnav û naskirî yê Seqizê ye, û berpirsyarên emniyetî û hikûmetî jî bi awayekî zelal ji vê rastiyê agehdar in.

Navbirî serbarê karên xwe yên fermî çend kitêb jî li derheq rênûsa zimanê Kurdî çap û bilav kirine, û fêrkarên wêje û zimanê Kurdî wekî çavkaniya hînbûnê bi kar tînin.

Di dawiyê de qonaxa nû ya vejiyana nerizayetiya mamostayan, hêviyê dide mamostayan û bi taybetî mamostayên Kurdistanê ku di boneyên xwe yên bihêt de, pêdagirtir ji caran bêne qadê û daxwaziyên xwe bînin ber bas.

Mamostayên me dibe vê rastiyê jî bizanin ku rewşa îro rojê ya Îran û herêmê ew qas guherînkarî bi ser de hatiye, ku deshilatdarên rejîma Îranê nikarin wekî berê pêvajoya serkut û kuştarê bidomînin.

# Gotinên Navdaran



**A: Firat Ceweri̇̂**

Derew ji tirsê dizê.

**Dostoyevskî**

Tirs, li bendîmayina xerabiya pêşerojê ye.

**Eflatun**

Peyayên tirsonek, bi namûs nabin.

**D. Szabo**

Mirovên ku di nava tirsê de bijîn, qet ne azad in.

**Horatius**

Gava tirsonek ne di talûkê de bin, kulma xwe li ba dikin.

**Goethe**

Kes ji mêrê tirsonek hez nake.

**Aristoteles**

Pirtûk bîrdariya serên windakirî ne.

**Sir Wiliam Davenant**

Ji bilî welatên kovî, hemû welat ji aliyê pirtûkan ve têne îdarekirin.

**Voltaire**

Pirtûka ku bi hêvî vebe û bi qezenc bête girtin ew pirtûkeke baş e.

**Alcott**

## *PDKÎ di rêûresma veşartina termê dîroknivîsê Kurd Wezîrê Eşo de beşdarî kir*

Kurdistanmedia: Şandek ji Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi serperestiya Dr. Xusro Ebdullahî li rêûresma bi axê spartina nivîskar û dîroknivîsê Kurd Wezîrê Eşo, di Biljîkê de beşdarî kir.

Li gora rapora malpera Kurdistan-media, 29'ê Çileya Paşîn a 2015'an, heyeteke Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi serperestiya Dr. Xusro Ebdullahî endamê cihgirê Komîteya Navendî ya PDKÎ di merasima veşartina kesayetiyê navdar, nivîskar, dîroknivîs û zimanzanê Kurd Wezîrê Eşo ku di welatê Biljîkê de bi rê ve çû, beşdarî kir. Roja Înê 23'ê Çileya Paşîn a 2015'an, Wezîrê Eşo di temenê 81 saliyê de, li bajarê Biruksêl a paytextê welatê Biljîkê wefat kir.

Navbirî dostê nêzîk û dilsoz ê PDKÎ û bizava Kurd di rojhilata Kurdistanê de b, û Komîteya PDKÎ li Biljîkê roleke berçav di vê rêûresmê de hebû.

Ew rêûresm bi pişikdariya sedan Kurdên çar parçeyên Kurdistanê û herwiha nûnerayetiya partî û aliyan bi rê ve çû.

Di vê rêûrsmê de peyamên alî û kesayetiyan derheq wefatkirina Wezîrê Eşo hat pêşkeşkirin
Di nav wan peyamane de peyama PDKÎ jî hebû, ku serxweşî li malbata kesayetiyê navdar ê Kurd Wezîrê Eşo û hemû gelê Kurdistanê kiribû.



## *Belgefîlma "Welatê me Kurdistan e" hate nîşandan*

Derhênerê belgefîlmê, Îbrahîm Yildirim da zanîn ku wan çîroka 85 salan a gelê Kurd bi dengê bilûrê derxistine ser perdeya spî, û got ku Egîdê Cimo yê di hişê Kurdan de cihê xwe girtiye, xizmeteke mezin a hunerî ji Kurdan û xelkê Yêrîvanê re kiriye.

Belgefîlma "Welatê me Kurdistane" ku jiyana Egîdê Cimo ku zarokê malbatekê ye ku ji Qelqeliya Wanê koçî Yêrîvanê kiriye, di mîhrîcana Êlihê ya Yilmaz Guney de hate nîşandan.
Derhênerê belgefîlmê ÎbrahÎm Yildirim ku bi Egîdê Cimo re li bakura Kurdistan û Yêrîvanê geriyaye, û belgefîlm amade kiriye, diyar kir ku ew ji ber nîşandana eleqeya bo belgefîlmê gellek kêfxweş e.

Yildirim got: "Egîdê Cimo hosteyê




bilûrê ye. Me dizanî ku bi Karapetê Xaço û Aramê Tîgran re xebitiye. Me dizanî ku 35 salan li Radyoya Yêrîvanê kompozîtorî kiriye. Yanî me Egîdê Cimo bi hunera wî nas dikir. Egîdê Cimo hate Amedê, û em 25 rojan bi hev re man. Malbata wî li gundê Çubuklu ya Qelqeliya Wanê diman. Em du rojan li wir man. Piştre em çûne gundê Yêrîvanê. Ez 17 rojan li wir bi Egîdê Cimo re mam."

Yildirim di berdewamiya axaftina xwe de wiha berdewam kir: "Di nava xebatên min de xebata herî bandor li ser min kir, ev belgefîlm bû. Armanca me ev bû ku em jiyana vî şexsiyetî derxînin pêş".

Çavkanî: ANF

# Zimanê Kurdî



Beşa 10. Dema xwendinê

## Jûrên xanî



Jûra razanê



Jûra rûniştinê



Jûra zarokan



Pêjgeh



Daşir



Serşok

# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

1- Malîkî mino, tu bi nîkilî ve.
- Girek di pêş te da, du qul têda.
- Kanîka qinê qinê, mîr û hakim dest didinê.

**Difin/poz**

2- Ji goşt û hestî ye, Pênc şax û bi destî ye, sed û yek huner lê ye, li heywana pê ye. De bêjin ev çiye?

**Tilî û dest**

3- Sindirûka Silêmanî, ne li erdî, ne li esmanî.
- Ne li erda ne li esman e, hêlîna kesrewan e.
- Mirov di behrê da namirit.
- Ji wêda tê, yek li til e yek li mil e, yek jî têda vile vile.
- Buxçika çekê mekê, ji Xwedê pê ve kes nikare veke.

**Jina bi hal**

4- Serê wî yê vi te, binê wî yê vi deyka te.
- Kundirê di latê de, tamên vê qa dinyayê tê de. Şêv bi têxt va ye, qismetek xweşik pêve ye.
- Kanî ya li nizarî/kendalî, mîr û hakima av jê vexarî

**Memik**

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

Agirî

◆ Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (247)

## *Çend dîmenên taybet ji rêûresma 2'ê Rêbendanê, salroja avakirina Komara Kurdistanê*












